Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 198
١٩'ê Çileya Paşîn a 2013'an
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

**Pîroz be 2'ê Rêbendanê salvegera avakirina Komara Kurdistanê**

**2'ê Rêbendanê roja avakirina yekemîn Komara Kurdistanê ji aliyê hezretê pêşewa Qazî Mihemed ve ye. Ew komara ku li zivistana sarr ya sala 1324'ê de, lê bi dilek pirr germ û pirr hêvî û bi axavtina Pêşewayê Kurdan hate ragehandin. Em vê roja pirr dîrokî ji tewaya Kurdan pîroz dikin û hêvîdarin ku rojekê em dîsan bibne xwediyê komarek weha li Kurdistanek azad û demokratîk de.**

**Desteya weşana duheftînameya Agirî**

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Iranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

R:3
**Serkomarê Kurdistanê**

**Turkiye li pey hevalan digere**

R:7
**Tarîperest ji ronahiyê tirsiyan...**

R:11
**Zimanên doh, îro û sibê**

# Doh Viyen û Birlîn, û îro jî Parîs bi xwîna Kurdan sor bû




## Şoreşgerên Kurd di landika demokrasiyê de bûne armanca gulleyan

Li Parîsê di encama êrîşeke çekdarî yek ji damezrênerê PKK'ê Sakîne Cansiz û nûnera KNK'ê ya Parîsê Fîdan Doxan û jina ciwan a bi navê Leyla Soylemez terorkirin.

Li gorî zanyariyan di vê êrîşê de çekan bêdengker hatibûn bikaranîn, û gulle li serê Cansiz û Doxan, û li zikê Soylemez ketibûn. Polîsên Fransî li cihê bûyerê dest bi lêkolînan kirin.

Piştî bilavbûna vê bûyera dilsoj gelê Kurd bi tewaya partî, rêkxiraw û nawendên siyasî û medenî ve ew teror bi tundî şermezar kirin, û herweha meşeke berfireh li bajarê Parîsê de pêk anîn. Dema ku termê wan şehîdan birne bajarê Diyarbekir, li wir jî gelê Kurd bi coşek bê mînak ve tevlî rêûresma pêşwazîkirina ji şehîdên xwe bûn û roja paştir jî her sê şehîd ber bi cihê ku malabatên wan lê dijîn birin, û ew bi hurmetekî bê mînak ve bi axê sipartin, û di vê roja xembar de malbatên wan bi tenê nehêlan. PDKÎ jî di daxuyaniyekê de ku di rûpela 2'ê de hatiye weşandin ew teror bi tundî protesto kir.

## Birêz Xalid Ezîzî serdana Deftera Siyasî ya PDKÎ kir

**Heyeteke hevalên pêşîn bi serperestiya rêzdar xalid Ezîzî serdana Deftera Siyasiya PDK Îranê kir.**

Li gor rapora malpera Kurdistanmedia, roja pêncşemiyê 17'ê Çileya Paşîn a 2013'an heyeteke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serperstiya Rêzdar Mistefa Hicrî pêşwazî ji heyeta hevalên pêşîn kir.

Di dirêjahiya dîtin û çavpêkavtina pêştir de baseka siyasî li ser rewşa Rojhelata Navîn, pirsên pêywendîdar bi tevgera mafxwziya gelê Kurd bi giştî, xebat û tekoşîna gelê Kurd li pêxema bidestveanîna mafên siyasî û netewî de kirin. Di vê civînê de li ser berdewambûna xebata azadîxwaziya xelkê Sûriyê û gelê Kurd di vî welatî de bi mebesta rûxana rejîma Dîktator a Beşar Esed û partiya Be's a Sûriyê, baseke siyasî hat kirin û bi vê encamê gehîştin ku piştî rûxana vê rejîmê rewşa siyasî ya Kurd, dê baştir be û gelê Kurd bi nehêlana astengiyên li ser rêya xebata xwe...

Dom R:2

## Bazirganekî Kurd li Moskoyê hate terorkirin

**Rojnameya "Corriere dela Sera" a Îtalî ragehand ku, pê diçe terorkirina "Eslan Osoyan" naskirî bi "Bapîr Hesen" kesatiyê bi nav û deng di bazirganîkirina çek û teqemeniyan de, pêwendî bi terora sê çalakên jin ên Kurd li Parîsê ve hebe.**

Rojnama navbirî terora Bapîr Hesen hevşêweya terora sê çalakên jin li Parîsê nîşan da û herweha ragehand ku, zanyarî evê yekê nîşan didin ku Osoyan yek ji wan kesan bûye ku herdem çekên Kilaşînkof û bobmeyên destî ji PKK re şandin e.

Salih Kerîmiyan:

**Eva 24 sal e ku min jin û zarokên xwe nedîtine, û ji wan dûr im, lewra hêvî dikim ku rojekê vegerim welat û bi azadî bi wan re...**

R:9

## PDKÎ di konfransa pirsa kurd de beşdarî kir

Di roja 24 û 25'ê Befranbara sala 1391'an de, Luqman Ehmedî endamê komîteya nawendî û berpirsê peywendiyên derve ên PDKÎ, beşdarî di konfransa pirsa Kurdên çar parçên Kurdistanê li bajarê Duheyê de kir.

Ev konfransa han ji aliyê sentera lêkolîna Elcezayêr û sentera lêkolîna sitratijî a Îraqê pêk hatibû.

Di roja yekemîn a konfiransê de, di du panêlên cuda de, pirsa Kurd li Îraq û Sûriyê û herweha pêvajoya guhertin û xwastekên netewa Kurd di wan welatan de ket ber bas û, di roja dûyemîn de jî pirsa Kurd li welatên Turkiye û Îranê xistin ber bas.

Dom R:2

## Daxuyaniya PDK Îranê derheq terorkirina sê çalakên siyasî ên Kurd li bajarê Parîsa Firansayê de





Li gorî wan nûçeyên ku ji Parîsê bilav bûne, şeva Çarşemiyê 20'ê Befranbara 1391'an a Rojî (09.01.2013) sê xûşkên Kurd bi navên Sakîn Cansêz, Fîdan Doxan û Leyla Soylemez, kurdên Kurdistana Turkiyê ku xwediyê rabihuriya tekoşîna siyasî û mafxwaziyê bûn, li bajarê Parîsa paytextê Firansayê bûne armanca êrîşeke terorîstî, û bi gulleyan canê wan jê hate sitandin û sibêdehiya roja pêncşemiyê 21'ê Befranbarê termê qurbaniyên vê terorê hate dîtin.

Deftera Siyasî ya PDKÎ tevî şermezarkirina vê kiryara terorîstî nerehetiya xwe derheq vê bûyera dilêş radigehîne û hevderdiyê di gel malbat û kes û kar û hevalên wan qurbaniyan dike, û hêvîdare ku Wezareta Navxwe û demûdezgehên têkildar ên Polîsê Firansayê her wek ragehandine, bi awayekî micid şûnpiyê terorîstan hilgirin û wan radestî dadgehê bikin û wan bi bîrûraya giştî a cîhanê bidin nasandin.

**PDK Îran**
**Deftera Siyasî**
**22.10.1391**
**11.01.2013**

---

## Sergotar

# Parîs Hejiya

**Şehab Xalidî**

PDK Îranê yek ji wan partiyan e ku li gorî wan pirensîpên ku li ser hatiye ava kirin, baweriyeke tewaw bi parastina mafên mirovan û mifahwergirtina ji riyên însanî û aştîxwazane bo gihîştina bi armancên xwe heye, û qet dest bo teror û tundûtîjiyê nebiriye, lê mixabin bixwe gellek caran bûye qurbaniyê terorê, ku terora herî bi êş û jan terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî li Viyenê, û Dr. Şerefkendî û hevalên wî li Birlînê de bû.

Lê ya ku cihê şanaziyê ye ew e ku vê partiyê qet li hember wan terorîstan de dest bo teror û tundûtîjiyê nebiriye û her gotiye aştî, aştî, aştî. Mixabin terorên li dervayî welat bi vê hindê jî bidawî nehatin û çend rojan berî niha mixabin sê jinên şoreşger, sê kolîlkên azadsiyê bûne emanca gulleyên qirêj ên terorîstan û hatin şehîdkirin, û tevlî karwanê sorxelat ê şehîdên Kurdistanê bûn. Vê terorê êşek giran danî ser dilê her kurdekî û her kurdek xembar û tazîdar kir.

Terorîstan viyan ku bi vê terorê peyamekê bidin, û peyama wan jî ew bû ku heke hûn bixwazin aştiyê di gel neyarên xwe bikin bona gihîştina bi armancên xwe, eva bizanin ku em li pêşiya we asteng in. Gelo di rewşek weha de divêt em çi bikin?. Bê guman gelê Kurd jî bona pûçkirina wan pîlanan tenê û tenê hewcehî bi moralek bihêz, û yekîtiyek netewî heye. Ew yekîtiya netewî dikare terorîstan serşor û bêhêvî bike, û pozê wan li erdê bimale.

---

**Doma nûçeya "Xalid Ezîzî serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir"**

wê bigîjin mafên siyasî û netewî di çarçîva sîstimeke nû a welatê Sûriyê de.

Her di vê pêywendiyê de bas ji bi pirsa Kurd û gotûbêjên serkidayetiya tevgera gelê Kurd li Kurdistana Turkiyê de li gel weletê Turkiyê hat kirin û ev piroseye, bi rêya çareseriya erênî ya pirsa Kurd di vîwelatî de hat zanîn, û her du alî li ser vê baweriyê bûn ku mifahwergirtin ji rewşa siyasî ya li Turkiyê de dikare çareseriya vê meselê zûtir bike, û pîlana neyarên aşitiyê lawaz bike.

Di dirêjahiya vê bas û gotûbêjê de, rewşa aloziya Îraq, rikeberiyên siyasî û olî yên Ereban di vî welatî de, çareser nekirina pirsa Kurd, weke mada 140'a destûra Îraqê û mesela deverên Kurdistanî yên Herêmê li gel Dewleta Nawendî hat bas kirin û di vê pêywendiyê de siyaset û helwêsta serokayetiya Herêma Kurdistanê û dirêjîdana bi diyalogê li gel dewleta Îraqê wek siyastek waqiebînane hat nirxandin, û li ser vê baweriyê bûn ku encama vê siyasetê cih û bingeha Kurd li Herêma Kurdistanê de berev pêşve dibe.

Xalek din a serekî ya vê rûniştinê bas li ser rewşa siyasî a Îranê û Kurdistana Îranê û wan kirîzan bû ku rejîma Îslamî a Îranê li encama siyaseta serkût, zext û givaşa li ser belengazên Îranê, û berdewambûna mehandina Oraniyûmê û siyaseta alîkarî kirin bi Terorîzmê û rejîmên Dîkdator weke rejîma Be's a Sûriyê bû, ku ev rejîme pitir li asta navxweyî û navneteweyî, îzole kiriye, û herweha zexta abûrî a ser rejîmê ji aliyê Civaka Navneteweyî ve, rejîm bê care û rewşa wê di ware aborî de aloz kiriye.

Her weha di vê civînê de bas ji vê hat kirin ku rewşa bûyerên siyasî û serhildanên cemawerî li hember rejîmên dîktator li halê geşekirinê de ye, û erkê hizb û aliyên siyasî yên Îranê û Kurdistanê ew e ku pitir girîngî bi diyalogê bi armanca hevkarî li ser xalên hevbeş li hemberî rejîmê de bidin, û bi gotarekî hevbeş li mediyayan de siyaseta rejîmê pûç û bê bandor bikin, û li kor û kombûnan de beşdariyê bikin , û bi taybet ev çavnihêriya civaka xelkê Kuristanê û gelên azadîxwaz ê Îranê li tekoşîna me hene, em bi cî bînin, û peyrewiyê ji siyasetekê bikin ku pitir derfetê bo hevkarî û hemahengiya hêzên siyasî ên Kurdistana Îranê pêk bîne.

Ew civîn li rewş û hewayeke dostane de bidawî hat û li ser dirêjedana bi kombûnan û gengeşekirina li ser pirsên girîng pêdagirî hate kirin.

---

**Doma nûçeya: " PDKÎ di konferansa pirsa Kurd de..."**

Di panêla taybet bi pirsa Kurd di Îranê de, Luqman Ehmedî bi nûneratiya PDKÎ, di despêkê de basek li ser xebata gelê Kurd û PDKÎ pêşkêşî beşdaran kir. Piştre Ehmedî got: "Di yekemîn hilbijartina parlemênta Komara Îslamî de 60 heta %80 ji dengên beşek berçav ji xelkê Kurdistanê bi destve anîn, lê rejîma taze avabûyî a Îranê, di cihê vê de ku rê bide nûnerên PDKÎ ku biçin parlemêntê, şerek hovane bi ser netewa Kurd de sepand".

Ehmedî di doma gotinên xwe de ragehand: "PDKÎ hemû hewlên xwe xistin kar ku pirsa kurd bi awayek siyasiyane bê çareserkirin, lê Komara Îslamî tenê bi riya tund û tîjî û kuştin û terorê bersiva tevgera demokratîk a gelê Kurd da. Bo mînak li ser maseya danûsitandinê rêberê gelê Kurd Dr. Qasimlo û bi dehan hezar kes ji xelkê medenî û çalakên siyasî ên Kurd Kuştine.

Navbirî pêdagirî li ser vê rastiyê kir ku Komara Îslamî a Îranê êdî siyaseta nevxwe û derve ya xwe, li ser bingeha nemana xwe darêtiye, lewra siyaseta tepeserkirina netewên Kurd, Ereb, Belûç, Turkên Azerî û Turkemenan kire bingeha siyaseta xwe û di hember vê siyaseta Komara Îslamî jî de, wan neteweyan jî Kongireya netewên Îrana Federal ava kirin da ku xebat li pêxema damezirandina sîstemek Federal û demokratîk bi awayê herî baş birêve bibin".

# Serkomarê Kurdistanê



Soran Kerbasyan



Dewleta Komara Kurdistanê ku li ser îrade û vîna piraniya êlît û nûnerên neteweya Kurd li gorî rewşa wê demê hate ragehandin, wek wêneya herî ciwan ya şoreşên siyasî ên neteweya Kurd tê hesibandin. Ew ragehandina jî hewcehî bi komek fakterên giring wek pêşîneya xwestekên netweya Kurd, nebûna çi dilxweşiyekê ji welatên hakim bi ser Kurdistanê de, êlît û rewşenbîr, serkirdeyên hişyar û karîzmatîk pêk hat. Hewce ye ku li ser her yek ji wan fakterên giring şirove û lêkdanewe bihê kirin ta ku em bikarin wêneyên gellek nêzîk ji dîroka rastîn a Komarê saz bikin. Li wir de hewil tê dan ku havrûyek ji serokatiya Komara Kurdistanê bê dan û pêdaçûnek bi ser mijarên din de emê bo demekî din bihêlin.

Navê serkomarê Kurdistan ku pitir wek navên Qazîmihemed û Pêşewa nav dibin, "Mihemed Himam Qazî" bûye. Rewan şad " Mîrza Xelîl Fetah Qazî" ku pirtûka dîroka malbata Qazî ji rûyê bîreweriyên wî ve hatiye çapkirin, li vê derheqê de gotibû: " xwedê jê razî Mîrza Elî Qazî du kur hebûn, yek Mîrza Mihemed Homamê wQazî, ku paştir wek Qazî Mihemed hate nasîn, ê duyê jî Ebulqasimê Sedrê Qazî".

Pêşewayê Kurdan yekemîn çalakiya siyasî a xwe bi awayek fermî di demekê de dest pêkir ku piştî daxwaziyek zor ji aliyê nîştimanperwer û êlîtên Kurd qebûl kir ku serokatiya Komeleya Jiyaneweya Kurd bi destve bigre.

Di dawiyê de jî ku PDK Îranê li ser hemen vê bingeha rêxistinî a Komeleya J - k, li salvegera avakirina v; komeley;de hate ragehandin, wek serokê PDKÎ hate hilbijartin. Li rewşek hejî de piştî nirxandina hemû alî û hewcehiyeke dîrokî ew partî wek yekem partiya modern a Kurd şiya ku bi alîkariya sercem wan Kurdên ku dikarîn beşdar bin, dewleta Komara Kurdistanê ragehînin û cenabê pêşewa jî ku li vê serdemê de, altirnatîva herî baş bo Kurdan bû, wek serkomar hate hilbijartin.

Pêşewayê Kurdan ku li malbatek zana û xwedîhurmet de mezin bibû, lê ew yek sedema sereke bo hilbijartina wî wek serkomar nebûn. Belkû kesayetiya taybetî a wî û jêhatîbûna wî cemawer han dida da ku wî wek serokê xwe hilbijêrin.

Yek ji erkên serok hişyarkirina civakê ye, moralek bihêz hebe û li ber bi pêşvebirina bernameyên xwe de bi ser kêşeyan de zal be, û li pêxema berjewendiya giştî da tev bigere. Cenabê Pêşewa her wek belgeyên serdemê Komara Kurdistanê piştrast dikin, berdewam ji riya qisekirin û birêvebirina kombûnan hewla hişyarkirina cemawer dida. Wî bi nirxandineke durus kesayetî bona piraktîze kirina bernameyên xwe hildibijartin ku li beşên curbicur de vê yekê reng dida.

Serokek serkewtî li rewşek aloz de hewil dida ku kêmtirîn xisar li civakê bikeve. Li gorî belgeyan dema ku dirêjiya jiyanê bo Komara Kurdistanê nema, wî xwe kire qurbanê tewaya gelê xwe.

Wî ew yek qebûl nekir ku neteweya wî berpirsayetiyekê be ku bixwe ew yek qebûl kiribû.

Cenabê Pêşewa li axavtina herî ku bi wan re here, gotibû: " ez xelkê li nexweşiyan de bi tenê

Serkirdeyekî serkevtî her demê hewla yekbûnê dide, bawerî bi berjewendiya giştî a neteweya xwe heye, û li pêxema berpirsayetiya xwe de disekine û xwe winda nake. Axavtinên wî ku beşek berçav ji rojanameya Kurdistanê de hatine çapkirin, vê yekê piştrast dikin ku Pêşewa herdemê bona qahîmkirina rihê yekbûnê, di nava hêzên Kurd de di nav tekoşînê de bû.

Serok hewce ye ku hezkirî be, û li ser bingeha pileya serwet û samanê xwe bi ser civakê de nesepîne.

Gellek ji hejmarên rojnameya Kurdistanê xudîkek in ji evîn û hezkirina cemawerê kurd ji serkomarê Kurd. Dema ku em bala xwe didne rewşa çapemeniyan di vê serdemê, guman li vê de namîne ku hezkirina xelkê ji Pêşewa ne ji nrûyê tirsê belkû bi sedema demokrat bûna û jiyana navbirî bûye, û deshilata Komaraê bona sepandina boçûnên xwe bi ser xelkê de bi kar nedianîn. Komara Kurdistanê bi sedema dabînkirina garentiyekê bona bergirî ji nasnameya Kurdan û tenhaiya wan hatibû ragehandin, ne bi sedema berjewendeyiya malbatî yan takekesî.

Hunera serokatina cenabl Pêşewa li vê yekê de pitir reng dabû, ku reftarên wî hilgirê peyama şaristaniya neteweya wî bû. Deshilata serkomar ne bo têrkirina hewcehiyên wî pêk nehatibû, belkû wî gellek caran berjewendiya xwe û malbata xwe xiste pêxema berjewendiya neteweya xwe.

Cuda ji vê ku hizra nîştimanperweriya serkomar di pêxema berjewendiya neteweya wî bû, bi sedema vê ku pêştir dadwerek jêhatî bû., şiya bû ku li ser berçavgirtin û parastina mafê tak li nav civakê de bandorek bê mînak hebe. Piraniya axavtinên wî ku li vê serdemê de hatine hilgirtin, vê yekê diselimîne ku axavtinên wî li ser bingeha berjewendiya giştî bûne.

Gelek kes li dîrokê de bi tac û mîdalên ecêb hewil dan ku xwe li ber çavê civakê berçav, zeq û ciwan nîşan bidin, lê hezkirinek ku îrorojê bo cenabê Pêşewa heye, tenê bi sedema dadperwerbûna navbirî û xwe fîdakirina wî bûye. Bi kurtî em dikarin bêjin ku serkomarê Kurdistanê li vê serdemê wêneya vîna neteweya xwe dixemiland, û niha jî ji serkirdeyên herî hezkirî li nav neteweya xwe de tê hesibandin.

Biryara dawiyê ya cenabê Pêşewa ku xwe fîdakirina bo tenahiya neteweya wî bû, selmênerê vê rastiyê ye ku li cem wî erk û berpirsayetî, li serveyî berjewendiya wî a şexsî de hebû. Serokek serkevtî her demekê hest bi jêpirsîna li hember gel û dîrokê de dike, ji tu cure xisareke giştî natirse û xwebextkirin li pêxema berpirsatiyê bi can û dil qebûl dike.

Cesûrî hewce ye ku li gotara her serkekî de hebe.

Eva hêza berz ya lênêrîn û hizra serkirde li gel şêweya derbirîna wî de ye ku li nav gel û dîrokê de nirxandin li ser tê kirin. Serok li derbirîna gotarekê de ku berjewendiya giştî ya neteweya wî têde dixuye, nasekine. Tewaya gotar û reftarên wî û biryarên wî, vê rastiyê diselimînin ku pêşewa ne tenê zana, xwedî hurmet û dilsoz, belkû serkirdeyekî cesûr bû, û li biryarên xwe de berjewendiyên netewî bi ser tev hêzên dagîrker û zilhêzên cîhanê de serwer kir.

Birêveberiya Komara Kurdistanê hecehî bi serokekê hebû, ku hem zanayane li ser rewşa bûyeran nirxanidn heban, û hem jî bawerî bi yasa û disiplînê heba, û hevçax li nasîna kesên derdora xwe de serkevtî ba, û gellek rastbînane pêngav hilgirtiban.

Diviya ew yek bi giştî li deselatdariyê de bihatiban gelale kirin ku soz û hezkirin li hember gel û nîştiman berçav bêne girtin. Erkek giran ku kêm serokekî li dîrokê de wek pêşewayê Kurdan "cenabê hezretê Qazî" kariye dîroka piştî xwe binivisîne.

# Destêwerdana siyaseta sitratejîk a rejîma Îranê



Efşar Ceferî



Daxuyaniya nerazîbûnê ya welatên Erebî yên Konseya Hevkariya Kendavê li dijî destêwerdanên rejîma Îranê di nav kar û barên welatên vê herêmê de, rojev germ kir. Welatên han nerazîbûnek xurt ji tevgerên destêwerdanên eşkere yên Îranê di nav kar û barên welatên derdora Kendavê de girtin û xwestin ku rejîma Îranê dest ji wan kiryarên xwe berde.

Destêwerdanên rejîma Îranê di nav karûbarên dewletên navçeya Rojhilata Navîn de, li dijî hemû pirensîp û konvansiyonên navneteweyî ne ku serweriya welatekê binpê dikin. Ev tevgera Îranê ne li ser daxwaza berpirs û rêberên wan welatan tên encamdan, belkî hemû di çarçoveya îdeolojîk a rejîmê de û bo alozkirina rewşa navxwe ya wan welatan hatiye darêtin.

Ev helwêsta dewletên Kendavê belkî vê siyaseta Komara Îslamî eşkere bikin, lê ev ne tiştek nû ye.

Bingeha siyseta destwerdana Komara Îslamî ya Îranê di nav kar û barên welatên deverê de vedigere bo destpêka bidestve girtina desthilatê ji aliyê vê rejîmê ve. Xumeynî wê demê biryar da ku bi hemû awayên mumkin "Şoreşa Îslamî" ku têza wî ya nû di cîhanê de bû, bo welatên din bişînin.

Bi taybet di wan welatên herêmê de ku îdeolojiya wan ligel rejîma Îranê cuda bû. Ji ber vê yekê ku bingeha rejîma olî ya Îranê li ser ola "Şîî" a 12 Îmamî hatiye avakirin, Xumeynî û rayedarên din ên Komara Îslamî xwestin bi rêya sazî û rêxistinên leşkerî û olî îdeolojiya "Şoreşa Îslamî" li hemû welatên herêmê belav bikin.

Taktîkên karbidestên Komara Îslamî bona meşandina siyasetên xwe yên destwerdanê, bikaranîna pirsên olî û îmkanên aborî û mesrefkirina pereyên xeyalî bû.

Piştevanî ji grupên terorîstî û tundajo li herêmê û dayina çek û pereyên zêde bi van komên ajawegêr di çendîn salên borî de bû sedem ku çend car heta Rêxistina Netweyên Yekbûyî û welatên mezin ên cîhanê van kiryarên rejîma Îranê şermezar bikin û hişyariyê bidin rejîma Îranê. Nimûneyên destwerdana rejîma Îranê di nav kar û barên welatên din pirr berçav û zêde ne, lê yên herî berçav, bikaranîna Hizbulahê li Başûrê Lubnanê li dijî Îsraîlê û alîkarî bi hinek grupên din re li navçeyên Felestînê, sazkirina Sipaha Quds û belavkirina vê hêzê li çendîn welatên deverê, çêkirina grupên radîkal ên Şîî li Yemen, Erebistana Seûdî, Behreyn û çend welatên din ên Erebî bona pêkanîna şoreş û nerazîbûnan, piştgiriya eşkere ji rejîma Bees a Sûriyê bi hemû awayekê, xurtkirin û piştevanî ji partî û grupên çekdar ên Şîî li Iraqê û Afganistanê.

Rojhilata Navîn çendîn sal e ku ligel şer û pevçûnên mezin re rûbirû ye. Yek ji sedemên bingehîn bon vê yekê destwerdan û rolê pirr xerab ê rejîma Îranê ye ku şerê xwe ligel Amerîka û Îsraîlê li ser axa welatên din dimeşîne. Lewma heta rejîma Îranê hebe û destwerdanê di nav kar û barên welatên din de bike, aştî û xweş nakeve herêmê û her car li deverekê dê fitne û alozî û nakokiyan pêk bîne.

Destwerdana Komara Îslamî ya Îranê li Sûriyê gihîşte astekê ku bi eşkere hemû hewlan dide vê rejîma hevpeymanê xwe li ser desthilatê rabigire. Di rewşekê de ku xelkê azadîxwaz ê Sûriyê ji dîktatoriyê bêzar bûye û berxwedana xelkê bo azadiyê dom dike, hezaran mirovên sivîl hatine kuştin, komkujî û cinayetên rejîma Sûriyê berdewam e û dehan hezar hevwelatiyên sivîl jî aware û derbider bûne. Pirr car dema li welatek cîhanê bûyerek biçûk diqewime, rejîma Îranê hawara xwe bilind dike, lê li hember kuştina sedan kesan rojane li Sûriyê bi destê rejîma Esed a hevpeymanê xwe kerr bûye û daxwaza kuştina zêde a xelkê nerazî jî dike. Hezaran çekdarên xwe ên Sipaha Pasdaran şandine Sûriyê daku xelkê qir bikin û hevpeymanê xwe li ser desthilatê biparêzin.

Destwerdan li kar û barên hundirê welatan û şandina "Şoreşa Îslamî" bo welatên din siyasetek strateejîk ya rejîma Îslamiya Îranê ye. Pêwîste ku Neteweyên Yekgirtî pêşiya wan kiryarên rejîma Îranê bigre û welatên herêmê ciddîtir li hember van liv û tevgerên rejîma Îranê li ser serweriya welatên xwe derkevin.

## Niqurçk



Selam îsmaîlpûr

Mihemed Elî Mowehidî pêşnimêjê Tehranê got: "Xelkê me hêşta jî her evîndarê axûndan in û emegdariya xwe li hemberî xizmetkarên xwe de parastine".

Bi rastî ew axûndane ew qas xweşkok û ciwan in, ku mirov li ber agirê eşq û evîna wan nikare xwe ragire, îca xelk jî neheq ninin ku hemû rojên xwe bikne Valintayîn. Başe axûnd xweşkok û rind û ciwan in, lê negotine herkesê rind û ciwan mîna şemamokê bû, êdî bibe conega li ser serê alemê. Ho Mihemed Elî, te got axûnd xizmetkarin, axii Mihemed Eliyêê nizanim çi, ma xizmetkarî mîna xizmetkariya axûndan be, xelkê zalim bo çi ne?

Mele kazimê Sidîqî pêşnimêjê din ê Îranê dibêje: "Di serdemê Mihemed Riza Şahê Pehlewî de, bajarên Îranê di nav gendelî û fesadê de bat bibûn û heta axûnd siwarî erebeyan jî nedikirin".

Ku wusa bû dema ku em dibêjin li Japonê gendelî pirr kêm e, tê vê wateyê ku kompaniyayên "Toyota" yan "Hunda" berî vê ku berhemên xwe bêxne nav bazarê, hetmen fikra vê hindê dikin ku gelo çawan hewzeya Îlmiyeya Qumê razî bikin ku komeke axûndan bişînne ser kolanên bajarê Tokyo li Japonê, da ku siwarî erebên wan bin. Lê em xwe xwe ne, mirov çi we veşêre çi xwedê veşêre, ma eva nine me jî 34 sal e axûnd li hêstra kore ya mam Qudret siwar kirine, û niha bi çi tiştî nahêne xwar.

Mele Kazim di doma axavtina xwe de dibêje: "Heke weliyê feqîh nebe, ew berpirsên me, dê goştê canê hevudin bixon. Lê nenêre ku niha li ber goregora weliyê feqîh nevêrin çi bikin". Qisên mele Kazim bo mehtkirina şerê pîşikan li nav hel û gova pêz de ew qas di ciyê xwe de ye, ku bawer kin zimanê min nagere ku ez tiştekî pêve zêde bikim. Tu dibêjî ka ew basê Tam û Cirî dike.

Ehmed Xatemî kesayetiyê naskirî ê rojên Înê yê Tehranê dibêje: "Piştî gefxwazrinên Îmam Xamineyî, yên ku hêşta jî bas ji azadiya hilbijartinê dikin, ew dujmin in". Bila em erzî xizmeta Îmam Ehmed bikin ku hilbijartin berî keremkirina Îmam Xamineyî jî her heram bû, û yên azadî dixwestin jî, her dujmin bûn. Ku wusa bû çima tu basê tiştekî dikî ku di binê tûrkê Îmam de jî nebûye? Te xêre tu eniya xwe dikî girê, û tûka serê te bîzbîzî dibe. Dê toleransa te têk biçe û gorregorra te jî namîne haa. Êdî wê demê li hel û paga wîlayetê de, ceh jî nadne te, û tê di vê kirofeya zivistanê de tayîs bî, û li çol û çiya de sergerdan û aware bimînî.

# Axavtinên vê dawiyê ên Beşar Esed



N:Lîz Silay

Roja 6'ê Çileya Paşîn Beşar Esed serkomarê Sûriyê li xwe derxistineke eşkere û kêmxûya de, tewaya wan kesan bêhêvî kir ku çavnihêr bûn hindî zûtir ew şerê navxweyî ji riya gotûbêj û danûsitandinan ve bigîje encamê. Di axavtinên vê dawiyê de avek paqij bi ser destê xwe de dakir, û di axavtinên xwe de tu nîşaneyek nîşan neda ku dixwaze desta ji deshilatê hilgire, yan jî tevî neyarên xwe bihê ser maseya gotûbêjan.

Serhişkiya wî di şer de nîşan dide ku tevî vê ku sipaha Esed xakeke zêde ji dest de derketiye, weha dixuye ku zêdetir aliyê tundûtîjiyê bi xwe ve bigre, ku heta hevalbendên herî nêzîk ên wî jî zêdetir ji vê xwînrêjiyê nîgeran dibin, ku her roj wek sitratijiyeke heyatî zêde dike û û zêdetir destê wî bi xwîna xelkê welatê wî sor dibe.

Di vê civînê de her çend ku vestiyayî dixuya, lê berberekanî dikir, her ku li xaneya opera di nawenda bajarê Dîmeşqê de dest bi axavtinê kir, tevî çepik lêdana germ ya alîgirên xwe berbirû bû. Serkomar gelaleya pilanekê dariştibû bona guherînê ku têde hikumeteke nû pêk were, peymaneke netewî bihê nivîsandin û referandom birêve here.

Pêşniyarên Beşar Esed gellek na rohn bûn, her çawa be mîkanîzmek nedabû ku li jêr vê mîkanîzmê de her wek opozisyon û piraniya welatên cîhanê daxwaz lê kiribûn ku dest ji deshilatê hilgire, lê ew naxwaze ku dest ji tu yek ji deshilatên xwe hilgire, çi bigîje bi vê ku deshilatê bide kesekî din. Di axavtinên xwe de berpirsatiya vê malkambaxî û xwînrêjiyê xiste stûyê welatên rojawa û ragehand ku pêş sekinandina şer û bangkirina bo konferanseke netewî bo danîna xişteyekê bo çaksaziyan divêt dawî bi alîkariya bi opozisyonê re bê anîn.

Esed di yekemîn axavtina giştîa xwe di meha Juenê heya niha ku nêzî du salan dibe ku serhildan bi dijî deshilata wî dest pêkiriye, her demê xwe rewa û xwedî maf hesibandiye, û herweha ragehandiye ku divêt bi hêza leşkerî berengarî dijberan bibe û wan tepeser bike, û wan weke terorîst û îxanetkar bihesibîne, û li qiseyên xwed edibêje " Ew şer şereke li navbera welat û dujminên wî de. Şereke li navbera xelk û tawanbaran de. Ez dîsan we xatircem dikim, heya vê demê ku terorîstek di nav xaka Sûriyê de mabe, em şer bi dijî terorîzmê ranagirin". Dema ku Beşar Esed ew yek got beşdarên civînê çepik ji Beşar Esed re lêxistin û sirûd jêre gotin.

Di vî heyamî de ku Esede qise kir, hêla înternêtê li Dîmeşqê de qut bibû, û hêzên hikumetê pirsgehên taybet li dewra paytextê danîbûn bo lêpirsîna ji xelkê. Bi vî halî jî tirsek ji dijberan hebû, heta di nav çeperên hêzên Esed de.

Lê qiseyên Esed cihê nîgeraniyê bûn, serbarê wan hemî xwînrêtinan hêzên Esed beşek zaf ji xaka welatê xwe ji dest dane, bi vî halî jî wî jêve ye ku dikare deshilata xwe bidomîne, bê tu cure sazanekê yan dana tu poanekê. Xanima Vîktoriya Noland berdevê karûbarên Wezareta Derve a Amerîkayê li waşingtonê pêşniyarên Esed ret kirin, jiber ku ew jî nîşaneyek din ji destbernedana ji deshilatê ye bi armanca tepeseriya zêdetir ya xelkê Sûriyê.

Herçend ku pêşniyarên Esed her ew bûn ku di derbasbûyî de kiribûn û li gorî rewşa welat, dijberan kariye li jêr çetra sipaha Azad a Sûriyê de beşek zaf ji bakûr û rojhilata Sûriyê bi destve bigre, û radeyek berçev çek û teqemeniyan bi dest bixin. Lêkoler dibêjin ku bîrkirina Esed tu gehrtin bi ser de nehatine.

### Sîbera Dîplomasiyê

Serberdayiya Esed sîbera xwe xistiye ser vê pêla çalakiyên dîplomasiya ku ji riya Ezxer Îbrahîmî, nûnerê taybet ê NY di holê de ye, hewil daye ku bi aramî û zext xistina li ser layenan kêşeyan li ser bingeha lihevhatinekê çareser bike, ku di meha Havîna borî li Jinêvê de, Amerîka û Rûsiye li ser wê lihevhatin, ku her du alî pêdgirin li ser û hewcehî bi rêçareya dîplomasiyê heye, lê girêdayî ye bi rolê her yek ji aliyan, heke bikin û Esed jî encam bide.

Esed li axavtina xwe de ew yek ragehand ku amade nine tevî opozisyona derve û tevî dijberên navxweyî ku niha li halê şer de ne, gotûbêjan bike, ku bê razîkirina wan serkewtin bê wate ye. Di demekê de ragehand ku: " dijberên me ku îdeolojiya îslamî hene, pêwendiya wan bi Elqaîdeyê re heye, û opozisyona siyasî jî pêlîstoka destê welatên rojawayî ne û îxanet bi Sûriyê kirine". Dema diyarîkirî bo axatinên wî bi qasî payama wî watedar bû. Wî hewil dida ku dijberan biçûk nîşan bide, lê li çend heftiyên borî de gellek destkewtên leşkerî bi dest xistin.

Sernekevtian Esed bû sedema vê ku bo heyamê çend mehan li nav cemawerê xwe dse amade nebe. Vê yek guman pêk anîbû ku renge Esed ji rewşa xwe pirr nîgeran be, û zextek bêqas li sewr e, û rojbiroj ji koşka serkomariyê zêdetir dûr dikeve. Renge tirsiya be û bîr ji silametî û pêşeroja xwe bike.

Bi vî halî jî her çend ku zer p lawaz dihate berçav, lê li ser axavtina xwe pêdagir bû, ew jî kuştar û xwînrêjî bû, û bona parastian deshilatê dest ji kursiyê xwe hilnagre, û li axavtina xwe de got: " bi tu awayekî em desta ji rêbaza diyarêkirî a xwe naînin, dest ji mafê xwe nakêşin, emê bergirî ji welatê xwe bikin, û emê wek derbazbûyî emê berdewam bin". Ew gefên navbirî her wek axavtinên Qezafî diçe, ku li demên dewiya deshilata xwe de dikir, û ew yek pîşeya tewaya dîktatoran e.

Îran tenê welatek e ku piştevaniya axavtinên Beşar Esed kie. Elî Ekber Salihî wezîrê karê derve ê Îranê got: " ew gelaleya Esed dijî tundûtîjiyê ye. Dijî kiryarên terorîstî û destêwerdana derekî di vî welatî de ye, bona diyarîkirina pêşeroja welat li ser bingeha curbicurî û beşdariya siyasî a hemû aliyekê".

W: Mo'tesem Nûranî

Çavkanî: www.washingtonpost.com

# Îran wek welatek ne azad hat nasîn




**"Freedom Hause"ê di rapora xwe a salane de, seba zêdebûna şîdeta tepeserkirina rojnamenûs û çalakên siyasî û civakî û kêmaniyên din û, herweha bona hijmara herî bilin ya îdaman di Îranê de, Îran weke welatek ne azad da nasîn.**

Di raporê de hatiye ku di sala 2012'an de, di navbera 195 welatên cîhanê de, 90 welatên azad û 58 welatên nîve azad û herweha 47 welatên ne azad hene.

Nawenda "Freedom Haus"ê di nava 90 welatên azad de, 47 welatên weke Amerîka, Ustralya, Kanada, Birîtanya, Alman, Feransa, Komara Çêk û Lehistan, welatên herî azd dan nasîn û, di nava 47 welatên ne azad de jî 9 welatên weke Erebistan, Sûriye, Turkemenistan, Uzbekistan, Koreya Bakûr, Êrître, Gîneya Ustiwayî, Somalî û Sûdan jî, weke welatên herî ne azad dan nasîn.

Her li pêwendî digel hijmara îdaman di Îranê de, hate ragehandin ku du hemwelatî bi tometa destdirêjiyên cinsî hatine îdamkirin ku hukmê yek ji wan di girtîgeha bajarê Meşhedê û yê din jî, li ber çavê xelkê li herêma Sebzewarê hatiye cîbicî kirin.

# Turkiye li pey hevalan digere



Şehab Xalidî



Hikumeta Turkiyê li gorî yasaya bingehîn ya vî welatî hikumeteke laîk e, û li serdemê Ataturk li ser bingeha cudahiya dîn ji dewletê hatiye avakirin. Kontrolkirina nawendên mesebî, qedexekirina kincên mesebî ji bo ruhaniyan li derveyî cihên mesebî, diyarîkirina rojên kekşemiyan wek rojên bêhnvedana fermî, û herwusa guherîna pîtên Erebî bo Latîn, ji girîngtirîn karên Ataturk bona Laîkkirina sîstema deshilatdariya Turkiyê û yasayîkirina norm û pîvanên Ewropayî di vî welatî de bûn. Lê piştî nemana Ataturk hinek partî ûrêkxirawên Îslamî hatin ava kirin, û bi hewildanek zor karîn mafê beşdarîkirina di hilbijartinan de bi dest bixin. Doma vê pêvajoyê piştî çendîn salî bidestve girtina deshilatê ji aliyê AKP'ê ve lê ket.

Niha AKP dixwaze ku bibe modêlek bo tewaya welatên herêmê, û dixwaze weha nîşan bide ku ew pêşengî û rêbertiya welatên Îslamî ên herêmê dikin û her di vê çarçoveyê de çend salan berî niha Turkiyê bi şandina alîkariyên madî bo rexê Xezeyê û piştî wê, axavtina tund ya Erdoxan bi dijî Îsraîlê li konferansa Davosê, pêwendiya ji mêjîn a di navbera Îaraîl û Turkiyê bo heyamekê têk da û bi vî awayî karî ku bala welatên Îslamî li vê herêmê de bo aliyê xwe rakêşe.

Lê li hember vê siyaseta Turkiyê de Erebistana Siudî ku xwe wek pêşengê tewaya Musilmanên Cîhanê li ser bingeha mesebê Sunnî dizane, li hemberî vê modêla Turkiyê de bûye astengekî micid. Ji aliyekî din ve Îran jî wan serhildanên welatên Erebî wek hişyariya Îslamî û doma şoreşa Îslamiya Îranê dihesibîne, û modêla deshilatdariya xwe wek modêla herî baş bo herêmê nîşan dide.

Ku wusa bû di navbera Îran û Turkiyê de rikeberiyekmicid heye, lê bi sedema vê ku Turkiyê hewcehî bi enijiya Îranê û herweha şandina kalayan bo Îranê wek bazarek germ bo Turkiyê heye, naxwaze ku ew rikeberî rengek eşkere bi xwe ve bigre. Turkiye bona asayîbûna pêwendiyên xwe ên aborî bi Îranê re, heyamekê bû navbeynkar li navbera Îranê û welatên 5+1, li ser pirsa navikî a Îranê di dema gotûbêjan de.

Lê pêwendiya pirr ji evraz û nişîv li navbera her du aliyan de ku di gel avakirina Komara Turkiyê wek sîstema panturkîzmê û bûna endama her du welatan li peymana Sintû de dest pêkiriye, di gel gehîştina pêla Bûhara Erebî bo nav welatê Sûriye, û piştevaniya Turkiyê ji dijberên rejîma Beşar Esed, û danîna sekoya mûşekiya Patiryot di nav xaka Turkiyê de. Êdî ew pêwendiyane bber bi sarbûneke zêdetir ve çûn.

Ji aliyekî din ve jî pêvajoya wan gotûbêjan ku Turkiyê di gel Îmraliyê dest pêkiriye, neyarên aştî û azadiyê, bi taybetî Îranê ji caran nîgerantir kiriye, û heke her du alî wate Îmralî û Turkiye bigîjne lihevhatineke baş, ew yek bêguman li berjewendiya her du aliyên hikumeta Turk û Kurd de dibe.

Ji aliyekî din ve jî Turkiye li hember piştîvaniya bihêz ya rejîma Îranê ji Malikî û bi hinek sedemên din, pêwendiyên siyasî û tîcarî ên xwe di gel hikumeta herêma Kurdistanê ew qas bihêz kiriye ku niha Herêma Kurdistanê ji riya Turkiyê ve petrolê bo derveyî welat dişîne, diyare ew pêwendiya di warê aborî de qazanceke zor digehîne her du aliyan. Lewra her du alî hewil didin ku pirsên navxweyî ên Turkiyê wek pirsa Kurd nebe asteng li ser riya pêwendiyên wan ên bihêz. Di rastî de ew pêwendiya bihêz serokwezîrl Îraqê gellek nîgeran kiriye.

Ji aliyek din ve li Kur5distana Sûriyê reng be PYD astengek micid be li ser riya vê Turkiyeya ku heya niha piştevanê bihêz ê dijberên Beşar Esed bûye. Lewra berjewendiya Turkiyê li ragirtina şer li gel PKK û destpêkirina gotûbêjên aştiyê de ye. Bi vî awayî Turkiye hem dikare ewlehiya welatê xwe biparêze û aboriya wî welatî geşe bike, û ji aliyek din ve dikare di pêşerojêde li gel Kurdên Kurdistana Sûriyê, wek herêmeke otonim pêwendiyeke dostane ava bike.

Bê guman girtine pêş a riya bdiyalogê û avakirina sîstemeke demokratîk ku têde bi bê ferq û cudahî tewaya neteweyan bigîjne mafên xwe, û bixwe qedera xwe diyarî bikin, tenê riya geşekirina welat û baştirîn model bo deshilatdarî li herêmê de, bi taybetî bo Turkiyê ye.

# Îraq ber bi kû ve diçe?



Kavûs Ezîzî

Piştî heyamek dirêj li binpêkirinên zagona bingehî ya Îraqê ji aliyê serokwezîr Nûrî Malikî ve, Erebên Sune jî rabûne ser piyan û xwepêşandan dest pêkirin. Ev nerazîbûna han di gel vê yekê tê ku heyamê salekî ye ku herêma kurdistanê jî di heman warî de (Di warê binpêkirinên zagona bingehî ya welat de) li gel Malikî rastî astengiyan hatiye û heta niha jî tu çareserî ji wan kirîzan re nehatiye kirin.

Erebên Sunne heta hiloşiyana rêjîma Seddam, xwediyê hemû deshelatan, û hemû mafekî wan di Îraqê de li yên din, wek: Kurd, Erebên Şîe û...hwd zortir bû. Lewra ew heta niha jî nikarin xwebidne qebûlandin ku êdî ew ne hakim in, û ew kêmaniyek in di Îraqê de. Lê eva jî li bîra me neçe ku Erebên Sunne ji aliyê piraniya dewletên Suniyên Ereban ve têne alîkarî kirin, di heman demî de jî Erebên Sunne xwdan ceribandinên zêdetir in ji kurd û Şîeyan, û dikaribin zû xwe bi rêxistin bikin.

**Gelo em bizanin ka armancên rabûne serpêyan ya Erebên Sunne çi ne, û kîjan aliyan dest têde hene?**

Ev destpêka hanê ne cuda ye ji Buhara Erebî, û ne cuda ye jî ji rîzbendiya ku di herêmê de hatiye holê. Îran, Sûriye, Nûrî Malikî, Hizbullaha Lubnanê û hinek derdorên din weke bereya Şîe xwe dane ba hev, û bûne xofek ji bo bereya Sunne ya deverê.

Ew bereya han di hember Suniyan de ku Turkiye, Qeter û Erebistana Siûdî sergêriya wan dikin, xwe îlan kiriye. Milmilanê di navebra wan de pir xurt bûye, lê di warê piştgiriya navnetewî û îmkanên din de, bereya Suniyan pirr bihêztire ji bereya Şîe û Herdû alî ji wan bereya dixwazin xwe berfirehtir bikin.

Her wek me got ku di Îraqê de Erebên Sunne li pey wan poanên ku bi hloşiyana seddam ji dest dane digerin. Bo vê mijarê jî dixwazin pêngava destpêkê bi vî awayî be:

**Xwe birêxistinkirin ji bo îlan kirina herêmek federalî a Sunne**

Di hember alaya Îraqê û ya Kurdistanê de, hildana alaya serdema seddam wek alaya herêma Sunne. Dest xistina piştgiriya dewletên Sunne û Turkiyê û ....hwd bo guhertina zagona bingehîn ya Îraqê, da ku bikaribin ber bi vegerandina deverên veqetiyayî yên kurdistanê bo ser herêma kurdistanê ve herin.

Dom R:10

# Îraq û pêşerojek nediyar



Arif Vêlzî



Nemana deselata Sunî li Îraqê û piştevaniya şîeyên herêmê bi taybetî rejîma Komara Îslamî ku xwedî pêgeyek bihêz a siyasî, abûrî û mezhebî ye di vê welatî de, rewşek pê anî ku, di qada siyasî a Êraqê de, şîe bibe xwediyê giraniyeke siyasî û herweha Kurd jî wek neteweyeke belengaz, li dîroka Îraqê de, li gorî destûrê li hikumeta tewafiqî ya wî welatî de bû xwediyê mafê xwebirêve birin li beşek ji herêmên xwe de.

Di hilbijartinên sala 2010'an de piştî kêşe û gengeşeyekî zor, bi lihevhatina di gel lîsta Elîraqiye û hinek ji pêkhateyên din, Nûrî Malikî bo cara duyemîn bû serokwezîrê Îraqê, lê vê carê bona parastina berjewendiyên xwe û hevalbendên xwe metoda tekrewiya siyasî girte pêş, bi dûr ji her terze yasa û rêsayekê, û heta bi liberçav negirtina lihevhatinên siyasîên di navbera aliyên Tewafoq li deshilatdariya siyasî a Îraqê de, kiryarên kêşesaz ên wek cîbicînekirina madeya 140 û çaresernekirina kêşeyên wek neft, budce, pêşmerge û ... derheq Kurd û dûrxistina hevalbendan û qebzekirina dezgehên aborî, leşkerî û emnî, keysa Tariq Haşimî û li ya herî nû de pêkanîna hêza operasyona Dîcle û girtina pasewanên Rafî' Îsawî, û komek kêşeyên din derheq Suniyan encam da ku bûne sedema alozbûna rewşa siyasî li Bexdayê, û qonaxeke nû ji rikeberiya siyasî, tayifî û mesebî li Îraqê de serî hilda ku di destpêkê de baykota Encomena Nûneran û gefxwarina vekişyana aliyan ji hikumetê, û di dawiyê de jî meşa cenawerî li parêzgeha Enbar û Felûce û li herêmên din ên Sûneakincî lê ket, û bi vî awayî warê emnî û tenahiya Îraqê tevlîhev bû.

Bê guman destêwerdana rejîma Îranê li nav karûbarên Îraqê de û piştevanî ji Malikî ji aliyek din ve, û destêwerdan û piştevaniya hinek welatên din ên herêmê ji Suniyan li hemberî Şîeyan ew rewşa pirr ji kirîz lê ket, lewra hewce ye ku hêzên siyasî ên Kurd li ser bingeha berjewendiya netewî, û ji riya cihên pêwendîdar û bi bandor, gellek hûrbînane reftarê bi vê rewşa pirr aloz û hestyar ya Îraqê re bikin û bi dûr ji pirsên navxweyî bîr ji yekîtî û pirsên netewî û sitratejîk ên xwe li ser astê Îraqê de bikin, ku bi xweşî ve ew yekîtiya berçav dikeve.

Jiber ku bidestveanîna zêdetir ya mafên gelê Kurd di vî welatê pirr ji kêşe û pirr kirîz de tenê ji riya yekîtiya wan hêzên siyasî ve ser digre û herweha Kurd bi vê yekîtiya xwe dikare, wek hêzek ektîv û çalak bandora xwe ya pozetîv hebe bo nêzîkbûn û çareserkirina vê kirîza niha ku Îraqê di dest de dinalîne.

# Rojev

## Tarîperest ji ronahiyê tirsiyan, lewra xwîna Ronahî û hevalên wî rijandin



Selîm Zencîrî

Terora sê siyasetvan û çalakvanên kurd li destpêka sala nû ya zayînî li bîroya Enformasiyona Kurd li Parîsê de şokek mezin da Tirkiyê û kurdan. Şokek ku her midehê carekê qedera wî miletî bindest tevlihev û aloz dike û bijarde û nirxên wê bi armanc digre û ji bilî standina wan ji me, tesîrê ji saykolojî û rewanê kurdan dike û dixwazin tirs û wehşetê bêxin nava Kurdan de.

Terora vê carê a Parîsê jî armancdar e. Ji ber ku her gav kurd û hikûmeta tirk xwastine diyalogê bi armanca çareseriya pirsê bikin, pirovaksiyonek ji hêla hin aliyên tarî ve çê bûye û guftigo têk daye. Vê carê jî heman senaryo! Em dibînin ku dewrek nû ji danûstandina dewleta Turkiyê û kurdan bo lihevhatinê (Çiqas bawerî û semîmiyet heye, ne zelal e)dest pê kiriye, demûdest destê reş ê terorê xwe gihand nav pirsê. Mixabin ji her du aliyan ve jî her kurd zerermend bûne, him gorî kurd in him jî xwediyê pirsê kurde ku dîsan pare dimîne.

Terora vê carê li demek gelek hesas a dîrokî û siyasî de hat encamdayîn. Demek ku cîhan bi giştî û dever ketiye ber bayê guhertinan û pêlên bihêze guhertinxwaziyê hevkêşeyên siyasî diguherîne û balansa hêzê û nemaze xerîteya siyasî jî guhertinê bi ser de tîne. Pêvajoya çareseriya pirsa kurd li Turkiyê jî ku têkadna wê armanca vê terorê bû, ne tenê pêwendî bi Turkiyê, belkî bi gelek welatên din yên deverê ku kurd têde dijîn heye û çiqas ji destê wan bê, vê hewla têkdan û sitewr kirina pêvajoyê bidin. Çunku çareseriya pirsa kurd li Turkiyê, rê li ber gelek pêşketinên Turkiyê vedike û li deverê de jî wê bibe lîstikvan û ektoê sereke û bi taybetî pêşengiya cîhana Îslamê bike. Hevdem ev hêviyên çareseriyê tesîrê li guhertinên nav Sûriyê de jî dike û dikare alîkar û lezatiyê bide hiloşandina rejîma Esed. Bi taybetî Sûriye û Îran ku zêdetir ji her kesî çareseriya vê pirsê bi zirara xwe dibînin. Sûriyê ku li ser kendalê gor e û hinde nemaye ku tevlî kirsdanka dîrokê bibe, lê Îran ku ektorek din ê deverê û serkêşî û pêşengiya baskê tarî li deverê de dike, li rikeberiyek xurt bi Turkiyê re ye û dixwaze îdeolojiya xwe li deverê de bide sepandin. Herweha li asta navnetewî de jî li bin zext û givaşên siyasî û aborî de ye û mana xwe li afirandina kirîzan de dibîne, bi taybet ku pêşîne û karnameyek tejî ji terorê jî heye. Lewma siroştî ye ku ew Turkiyeyek aram, ewle û demokratîk nexwazin ku pirîşkên xwe bawêje nava wan de jî.

Li navxweyî Turkiyê de jî hêzên tarî, nejadperest û şovenîstên tirk hene ku dijberiya çareseriya pirsa kurdan dikin û bi navê dewleta kûr û ergenekonê dixwazin pêvajoya çareseriyê beravêtî bikin. Herweha renge sîstemên sîxorî û dezgehên zaniyarî ên wan welatan jî xwe xuşikandibine nav tevgera kurdî de û di bin navê ''teswiye hesabên navxweyî'' de bixwazin derbê ji pêvajoyê bidin. Herweha renge li nav hevkêşeyên deverî û cîhanî li derveyî welatên ku kurd têde dijîn jî neyarê proseyê hebin û qazanc û berjewendiyên xwe her li dîzayna kevn û pir ji şer û ajawe a deverê de bibînin. Lewma ev hemû eger û guman hinekê dîtina bikujan zehmet dike.

### Berpirsatiyek dîrokî

Her çi be taze teror hatiye encamdayîn û me ew ji dest dan û li her şeklî de jî hat mehkûm kirin, lê ya girîng ew e ku her kes bi berpirsatî tevbigere û ya ku dikewe ser milê wan, bona çareseriya aştiyane encam bidin. Hikûmeta Firansa bona wê ku xwe bikre û rê li ber dubarebûna terorên weha bigre divê berpirsiyar û bikujan eşkere bike û bûyerê tarî û li pişt perdeyan de nehêle û neke qurbaniyê berjewendiyên siyasî û aborî ên xwe, ji ber ku weke terora Viyenê dê rûreşê dîrokê bibe. Aliyê kurd û hikûmeta Turkiyê jî nabin bikewin vê telik û dawika metirsîdar ku armanc xurtkirina agirê şer û kuştinê ye. Bona wê ku dem heder neçe, divê her du alî pêgir bin li ser domandina pêvajoyê. Daku bi çareseriya pirsê re bibin bersivek xurt bo daxwazên wan cangoriyan di nav çavên nejadperest, dîktator û terorîstên deverê ku bûna xwe li wehşetê de dibînin..

# Îmamzade rojê 180 milyon Tûmenî alîkariya Xamineyî dikin

**Dahata Xamineyî di neh mehên derbazbûyî de digîje 51 milyard tûmenî**

**Ehmed Şerefxanî, cêgirê saziya Ewqaf û karûbarên xeyriye ragehan ku Ev dahata han ya 9 hezar û 192 Îmamzadeyan e.**

Berpirsyarên saziya navbirî ku rasterast ji aliyê Xamineyî



ve tên hilbijartin, serbarê hewlên du nûnerên Parlemênta Îranê, amade nînin ku hûrdekariyên bikaranîna bûdceya han bas bikin.

# Çima telaq di Îranê de ew qas zêde ye



Sefye xaldî



Li despêka peydabûna mirovan li ser topa erdê heta niha hertim jin û mêr bihevre jiyane û zarok çêkirine, di çarçovekê de bi navê malbatê di gel yasayên rêk û pêk û pir ji evîn û hezkirin jiyan bi xweşî meşandine, bona ku mirovan di ser du qatan de parve bikin: Jiyana berî zewacê û jiyana piştî zewacê.

Dema mirov biryar dide ku bizewice, di heman demê de berpirse li hember biryara xwe, jiyana mirov pişk dibe û bi tenê çênabe ku di qonaxên jiyanê de biryaran bide û bixebite, jiber ku ew naçare raya hevala/ê xwe jî bipejirîne û bikar bîne. zewacê wateyek serekî heye bi navê parastina nifş, ger ku zewcîn tunebe û têkiliyên jin û mêran kêm bin, sedî sed pêşeroja mirovan metirsîdar e, herwusa zewac tîcaret nine, hekî zewacê wek girêbest lê binêrin, gelek berçave ku temenê wê kurt e, û tenê bûyera nexweş ku rû dide bûyera telaqê ye.

Telaq hîsa têkçûn û tinêtiyê û bextreşiyê dide însanan, lê gelek jin û mêr piştî telaqê dilxweş dibin, çûnkî jiyana hewseriya wan şaş bûye, bûyera telaqê gelek sebeb û sedemên cur bi cur hene.

Di wan salên davî û di gel pêşveçûna jiyana bajarî û guhertinên şêweya jiyana sunetî ber bi jiyana modern ve, sîstema malbatî digel guhertinên cur bi cur berbirû bûye, bi awayekî bûye sedema zêdebûna hijmara telaqê, kûrahiya wê babetê heya radeyekê ye ku, bi bawerîya civaknasan di îro demê de gelek zirarên malbatî siyasî, aborî, çandî, girêdayî bi pirsgirêka telaqê ve hene û bandorn nêgetîv dixe ser pêşkevtin û serkevtina civakê.

Di vê serdemê de dab û nerîtên civaka kevnar dijî civaka modêrn e, û qata nizim a civakê wan baweriyên kevnar diparêzin, qata nizim (hejar) seba neçariya jinan û xwe girêdana wan bi mêran bo vê ku bijîn û, herweha seba vê ku di nava qata nizm a civakê de, telaq karek xirab û têkçûnek mezin e bi taybet ji bo jin û zarokan û bi baveriya wan, jin namûsa mêr e û bi kultûra çend jiniyê razîtirin heya telaq û ji hev veqetiyanê, lê di qata nawendî de ku hem girêdayiya jin bi mêr re kêmtir e û hem jî piraniya mêrên wan malbatan, yan xwedî kar û kasibiyek azad in, yan karmend û xwedî pîşe ne. Di dema kêmbûn yan nedana mûçeyên karmendiyê û herweha bêkarî û tengkirina derfetên pîşeyên azad ji aliyê rejîma Îranê ve ku niha seranserê welatê Îranê dagirtiye, asta jiyana wê qata civakê nizimtir dike, û eva jî xwezayî ye ku pirsgirêk di hundirê malbatan de ser hildin.

Piraniya bûyerên telaqê di vê qata civakê de rû dide. Qata sêhemîn ku qata bilind (dewlemend)e, seba hebûna îmkanatên jiyanê û nebûna hewcehiyên madî û derûnî, kêmtir digel pirsgirêkên han berbirû dibin û, lewma di vê qata civakê de bûyera telaqê kêmtir tê xûyakirin. Li gorî zanyariyên civaknasan,di navbera pênc salên destpêka jiyana hewseriyê de telaq rû dide û ew çend sal gellek hesas û girîng in. Li gor serhejmêrî û lêkolînan, di sala 1391'an de, temenê wan mêran ku tûşî bûyera telaqê dibin 25 heya 29 salî û temenê jinan jî 20 heya 26 salî ye, herweha nêzîkî %15 ji wan bûyeran di nava sala yêkem a jiyana hewserî de û, %50 jî di navbera pênc salên despêka jiyanê rû daye. Hijmara zewacê ji sedî sê û hijmara telaqê ji sedî 10e, û pitir ji %80 daxwazkarên telaqê, ev jin in ku temenê 15% ji wan di navbera 20 heya 24 saliyê de ne.

Piraniya civaknasan sebeba herî girîng a zêdebûna amara telaqê, vedigerînne ser nebûna nasyariya jin û mêran bi hevre û, çareseriya wê jî vedigere ser fêrkirin û nîşandana rabûn û rûniştinên baş û pêşkevtî, ku bi şêweyên cur bi cur tên bikaranîn. Bo mînak: Bi wergirtina zanyariyên mentiqî li dor mijara zewacê û herweha dab û nerîtên poztîv ên malbatî, zêdekirina dema desteserkirinê ku 9 heya 12 mehan tê pêşniyarkirin, bona zêde hevdu naskirinê, hemşêvrî di gel pspor û kesên serkevtî di vî warî de. Mixabin gellek qîz û xortên me di dema hilbijartina hevala/ê xwe, tenê giringiyê didin bejin û bal û rêçûna wê/wî û, herweha nêzîkî %40'ê ji qîzan pêş zewacê, tu gotin û mercek ji bo hilbijartina zilamê xwe nînin û dibêjin, tenê ji hevdu hezkirin girîng e!

Yek ji sebebên serek ên telaqê, pirsgirêkên aborî ye û herweha nezanî û ne xwendewarî jî bandorek mezin xistiye ser mijarê. Lê malbat jî xwe bê sûçdar nizanin, ji ber ku gellek malbat bitaybet malbatên kurd di Îranê de, girîngiyê nadin temenên zarokan û, herweha çêkirina pirsgirêkên mezin wek mareyî û kirrîna tiştên zêde û binirx û...hwd, ku di pêşerojê de dibin sedema vê yekê ku dilsarî di navbera bûk û zava de çêbe.

karkirina jinan bandorek girîng dixe ser kêmkirina amara telaqê, bi awayekî ku jimara telaqê di nav jinên ku mamoste ne ji sedî 4 ta 5 e, lê di nav jinên karmend û xwedî pêşe de %10 e, û zêdetirîn hijmara telaqê, vedigere bo jinên kebanî û maldar, ku ev jî %68 e. Lêkolîn vê yekê diselimînin ku, têkeliyên hewserî, dilovanî, evîn, hurmet û ji hevdu fahmkirina dualî dibe sedema serkevtina jiyana hevpar. Dibe jin û mêr di têkeliyên xwe ên cinsî de, hevdu fahm bikin û derfeta nîşandana hîsa xwe bidin hevdu û, paqijî û evînê biparêzin da ku jin dilsar nebe û mêr jî şîyan hebe ku têkeliyên wan, hêminiyê bide derûna wan. Li gor çavkaniyên rijîma Îranê %78 sedemên telaqê pirsgirêkên jinsî di navbera jin û mêrên Îranê de ye. Lê mixabin ev mijar tu caran nehatiye çareserkirin, cûnkî bawerî û siyasetên xelet ên rêjîma Îranê rê li pêşiya xelkê girtiye. Siyasetên weke qedexekirina setelayt û nebûna pirogramek zanistî bona nasandina jin û mêr di warê fîzîkî û ruhî de. Heta rê ji hez û peywendiyên weke axaftin û kincên keç û kuran di civakê de digire.

Telaq di her civakekê de pirsek xwezayî ye, lê zêdebûna wê gefek mezin e. Civaka Îranê û welatên Ewropayî, bi tu awayekê wekhev nahê şirovekirin , lê mixabin xelkê Îranê, çavlêkeriyek pir zêde dike, pêşveçûn ne xirab e lê hilbijartina kultûrek ku tu zaniyarî ser wê nîne xirab e û, ne tenê dibe sedema paşvemana wan kesan belkî dibe sedema têkçuna hêminiya jiyanê jî. Niha li Tehrana pêtextê Îranê ku nîşana kultûra Îranê ye, amara telaqê di îsal de gehîşt nêzîkî 17 hezar û 846 kesan û li gor sala çîyî %6 zêdetir bûye. Baweriya jin û mêrên Tehranî di wê serdemê de bi zewaca ne fermî ber bi zêdebûnê ve dice. Zewacek ku têde bi awayek fermî nebin jin û mêr, belkî azad bin û her kes çava dixwaze jiyan bike û mal û milkê wan cuda ye û temenê zewaca piraniya wan jî kêmtir ji salekê ye. Rewşa pêywendiyên malbatî di Tehran û Elborzê de metirsîdare û civaka Îranî lawaz û tevlîheve dike, lê rijîma ku dijî mafê mirov û jin e, tu pêngavekê ji bo çareserkirina wê pirsgirêkê navêje.

Dibe riyên zanistî û pêşkevtî li gor jiyana îro a xelkê cîhanê bixin pêşberî xelkê Îranê. Lewma tu kes xincî rijîma Komara Îslamî tawanbar nine, çûnkî rêjîm bi baweriyên xwe ên sunetî û derevîn xelkê hejar dixapîne û, xelkê zana jî direvin û di gel pirsgirêkên civakî weke çend jinî, zilm û zora derheq zarokan, bikaranîna madeyên hişber, qaçax û firotina jin û zarokan, bêkarî, xwekuştin û şewitandina jinan, zewaca bi zorî, tecawiz bi jin û zarokan, îşkencên jismî û ruhî bûne agir ku civaka Kurd, Turk, Ereb, ... hwd jî bişewtîne.

Salih Kerîmiyan:

## Dr. Qasimlo aşpêj gazî kir û gotê: "Çima te şeş pirtikên goşt min re têkirine, lê bo vî pêşmergê sê pirtik? Em her du her pêşmergê PDKÎ ne, û para me wek hevudin e, û sê pirtikên goştê di nav taska min de cardin vegerîne nava mencelê de".



Hevpeyvîn: Faxir Molûdî

**S**alih Kerîmiyan naskirî bi Mam Salih, kurê Mihemed, sala 1326'an, li gundê Nerwî ya ser bi bajarê Pawê, di malbatek cotyar û zehmetkêş de tê dinê.

Gundê Nerwî jî weke piraniya gund û deverên din ên Kurdistanê ji xwendingeh û nawendên fêr bûnê bêpar dibe û tu îmkanatên xwendinê bo xelkê nehatine dabînkirin, lewma Salih jî nikare here mektebê û dersê bixwîne. Mam Salih her di despêka zarokatiya xwe de tevî malbata xwe dest davêje karê cotyarî û ajeldariyê û heya serheldana şoreşa gelên Îranê li ser karê xwe berdewam dibe.

Salih Kerîmiyan weha basê nasyariya xwe bi PDKÎ re dike; Di serdemê Komara Kurdistanê de, Pêşmerge, endam û alîgrên PDKÎ di devera me de hebûn, lê me nas nedikirin. Lê hevdem digel şoreşa gelên Îranê û hatine serkara rêjîma Komara Îslamî de kadrek hizbê bi navê Eskender ku xelkê bajarê Nodşê bû, dihat û basê mafê netewî û gelê Kurd bi me re dikir û herweha digot ku PDKÎ niha endamgîriyê dike û hewcehî bi xortên weke we heye. Gotinên Eskender bandoreke pozitîv xist ser me û min Û Mela Ehmed Rehîmî weke endam navê xwe nivîsand û her li gund de me rêkxiraw ava kir. Eva despêka nasyariya min bi mijarên siyasî û netewî û PDKÎ bû.

Navbirî herweha dibêje ku "Di Buhara sala 1358'an de, ez çûm bal komîte şaristanê û min daxwaz jê kir ku dixwazim weke pêşmerge xebata xwe ya siyasî bidomînim. Berpirsê komîtê ku şehîd Ebdulla Behramî bû, daxwaza min pejirand û çeka peşmergatiyê dan min û ez bi awayek fermî bûm pêşmergê PDKÎ û heya niha jî li ser xebata xwe berdewam im, û heya roja dawî a jiyana xwe jî rêbaza Demokratê bernadim.

Salih Kerîmiyan derheq jiyana xwe ya hevpar weha bi Agiriyê re diaxive: "Payîza sala 1351'an de, min di gel Helîme Miradî her li gundê xwe de jiyana hevpar pêk anî û berhema jiyana me jî du keç û kurek in".

Mam Salihê xebatkar herweha dibêje ku, di dema kîmyabarana Helebçê de, wate eva 24 sal e ku min jin û zarokên xwe nedîtine, û ji wan dûr im, lewma bi tenê hêviyeke min heye, ev jî ev e ku cardin vegerim nava malbata xwe de û tevî jin û zarokên xwe jiyanê bikim.

Mam Salih di bersiva pirsyara xweşiyên jiyana pêşmergatiyê de got; "Pêşmerge rojên xweş di jiyana xwe de nedîtine, jiber ku rojekê şer e, rojekê bê xewî ye, rojekê birsîtî ye, rojekê jidestdana hevalan e û...hwd.

Lê roja herî xweş a jiyana xwe, weke bîrewerî weha tîne ziman: "Em li Qendîlê bûn, dema xwarina nanê nîvro hat, em çûn nav rîza wergirtina xwarinê de, piştî bîstekê min dît ku Dr. Qasimlu piştî min di rîzê de ye, min pir şerim kir û pêre got, qurban ez di şerman de mirim, çima tu nahê pêşiya min? Di bersiva min de got ku tu cudahî di navbera pêşmerge de nîne, û bi tenê erkê min ji te zêdetir e, û ez weke sekreterê partiyê hatime helbijartin. Aşpêji risq bo min têkir û dema min dixwest herim û nanê xwe bixom, Kak Dr. Qasimlo min re got bisekine, dema xwarina wê jî amade bû, min re got, "Di tasika te de çend pirtikên goşt hene?" min jî di bersivê de got "Qurban sê pirtik hene". Wî aşpêj gazî kir û gotê: "çima te şeş pirtikên goşt min re têkitine, lê bo vî pêşmergê sê pirtik? Em her du her pêşmergê PDKÎ ne, û para me wek hevudin e, û sê pirtikên ji goştê taska min cardin vegerîne nava mencelê de". Herweha li dor roja herî nexweş a jiyana xwe wîpîşmergî fîdakar got: "Ez li Qislanê di meqerê Komîte şaristanê de bûm ku, ji nişke ve RDKÎ nûçeya birîndar bûna Kak Dr. Qasimlo belav kir. Em bi giştî pir nerehet bûn, lê eva ku hindek dilxweşiya me dida ev bû ku heşta Dr. Qasimlo şehîd nebûye.

Lê mixabin roja din



**Eva 24 sal e ku min jin û zarokên xwe nedîtine, û ji wan dûr im, lewma bi tenê hêviyeke min heye, ev jî ev e ku cardin vegerim nava malbata xwe de û tevî jin û zarokên xwe jiyanê bikim**

nûçeya şehîd ketina navbirî belav hate bilavkirin. Di rastî de ez pir nerehet bûm. Min tu hêvî neman. Ez niha jî heyirîme ku çawan ez tûşî kirîza dil nebûm. Kadr û pêşmerge pir bê hêvî ketin, lê dema Dr. Sadiq di cihê şehîd Qasimlo de rûnişt, cardin em rabûn ser piyên xwe û me zanî ku PDKÎ her weke berê xebata xwe didomîne. Salihê pêşmerge dibêje; "Piştî wan hemû salên xebata min ku têde ciwanî, sermaye, jin û zarok û temenê min tê de çû, bi tenê çavnihêriyek min ji PDKÎ heye, ev jî eve ku bi çavê rêz û hurmetê li me binêre.

Di dawiyê de Mam Salih rû li xelkê Kurdistanê dibêje: "Ez weke kesekî ku min temenê xwe di pêxema azadiya gelê xwe de daniye, daxwazê ji xelkê Kurdistanê dikim ku alîkar û piştevanê PDKÎ bin, jiber ku bi baweriya min bi tenê PDKÎ ye ku dikarê vê xelkê rizgar bike û hikumeta dahatî ya Kurdistanê bigire destê xwe.

Herweha gazî xortên Kurdan dikim ku, bên û refên PDKÎ pir bikin û xebat û berxwedanê her germ ragirin.

# Bajarê Pawe



Mecîd Cinîkanlû



Şaristana Pawe yek ji Şaristanên herî bi nav û deng ê parêzgeha Kirmaşanê ye. Bajarê Pawe li 112 kilomêtriya bakûrê rojavayê bajarê Kirmaşanê cih girtiye û piştî derbas kirina hin rêyên asteng ên zincîre çîyayên Zagros, bajarek wek Pêlekana xûya dike ku ew bajar Pawe ye. Bajarê Pawe seba xwezaya bedev û bê mînak bi yek ji bajarên herî xweş ê Kurdistana Îranê û bigire Îranê tê, naskirin ku xwezaya dewlemend a wî bajarî li gel jîyana xelkê bajar têkel bûye û wek navendekî geryanê lê hatiye.

Şaristana Pawe bi bilindahiya 1463 mêtroyan ji behra azad û barîna salan a 830 milîmêtr baran û berfê û av û seqaya navendî a çîyayî li parêzgeha Kirmaşan a Rojhilatê Kurdistanê cih girtiye.

Nifûsa şaristana Pawe li gor serjimêriyên sala 1385 a rojî 55889 hezar kese û panahiya vê 803 kilometra çargoşe ye. Şaristana Pawe ji aliyê bakûr tevî şaristana Merîwan,ê û ji aliyê başûr tevî şaristana Ciwanroyê û ji aliyê rojhilat tevî şaristana Sinê hevsînor e. Her wiha şaristana Pawe ji aliyê rojava bi dirêjahiya 96 kilomêtran tevî başûrê Kurdistanê hav sînore.

Şaristana Pawe xwedîyê 1169 hezar hektar erdên çandinîyê, 83100 hektar daristan, 39924/91 hektar lêrewar û 5847 hezar hektar zevîyên akincî bûnê ye.

Li herêmê de bi deyan çem û rûbarên mezin û kûşke di herikin. Çemê mezin û bi nav û deng ê Sîrwan di vê herêmê de derbas dibe û avedaniyek baş jibo herêmê çêkiriye.her wisa di herêmê de çend çemên din ê wek Leyle, Mirxîl û çemê pawe hene ku her yekê taybetmendiyên xwe hene û jibo avedaniya herêmê rolek bingehîn hene.

çîyayên herêma Pawe û hewramanê ku pişkek ji çîyayên Zagros ê ne, çîyayê Şaho li hembêz digirin. Şaho bi bilindîya 3400 mêtran yek ji çîyayên herî bilind ê Kurdistana Îranê ye ku li bakûrê rojhilatê bajarê Pawe cih girtiye.her wisa çîyayê Ateêga ku çîyayekî dîrokî û xwedî gelek taybetmendiyan e li cem bajarê Pawe ravestane. Çîyayê Ateşgah di serdemê Zerdeştîyan cihê hilkirina agirê pîroz ê Zerdeştîyan bûye. Bilindahiya çîyayê han 2469 mêtre. li wan çîyayên bilin û xweş de bi sedan bax û baxçe hene ku fiqîyên wek:Gîz, Tot, Hinar, Gilhinar û... têde berhem dên.

Pawe yek ji 13 şaristanên parêzgeha Kirmaşanê ye û sê herêm û çar bajêr û pênc dêhêstan hene ku dîroka akincî bûnê li herêmê de jibo 2hezar salan berî niha vedigere ku çêkirina wî bajarî ji kevirekê bi nave Hezar Masûle hatiye çêkirin.

li ser peyva Pawe gelek bîr û ra hene, lê pêka gotinên xelkê herêmê û peyvên zaravê Hewramî, pawe bi wateya paqij tê. Lê hin kes jî dibêjin ku Pawe ji navê serdarê Yezdgirdê Sê tê, û ku Pawe kurê Şapûr û biraziyê Newşîrwan ê Sasanî bûye ku Yezdgird nav hatî jibo berfirh kirina olê Zerdeştî şandiye herêmê.

Li zaravê Kurdî a Hewramî de Pawe bi wateya li ser Pêyan ravestayî tê gotin ku dûr niye ev nav rast be.

Xelkê herêma Pawe hemû Kurd û bi zaravê Hewramî di peyvin. Xelkê herêmê piranî musilman û oldarê Îslamê ne.

Her seba vê yekê li herêmê de gelek cih hene ku xelkê herêmê jibo zîyaretê serdana wan cihan dikin û ji aliyê xelkê herêmê weke cihên pîroz tên hesibandin.

Bo mînak em dikarin amaje bi Îmam Zade Seyd Ûbêydula, birayê Îmam Riza û naskirî bi Kose Hecîc bikin. Her wisa zaf cihên din wek: Sultan Îshaq, Seyd Mehmud Êsfehanî, Şêx Mihemed Ezîz , Şêx Hisam û Qurana gundê Zerdoyî bikin.

Kurdên Pawe di refên tevgera rizgarîxwez a netewa Kurd gelek quranî û bedîlên mezin dane û di rêya hande gelek malwêranî dîtine. Li serdemê rejîma berê bi caran xelkê herêmê li dijî dewletê şer kirine,lê her tim haine tepeser kirin.

Piştî bi deshilat gihîştina Komara Îslamî a Îranê û pêşkeş kirina xwestikên gelê Kurd ji aliyê PDK Îranê, mixabin Pawe yekem bajarê Kurdistanê bû ku bi fermana Xumêynî kete ber êrîşê û bo heyamê sê mehan xelkê herêmê û pêşmergeyên qehreman ê PDKÎ li hemberî Caş û Pasdarên xwînrêj ên Komara Îslamî de şer kirin û mixabin di encama şerê han de xelkekî zaf bi destê hêzên rejîma Îranê hatin şehîd kirin.

Kurdên Pawe di refên Şoreşa azadixwezî a gelê Kurd kesên wek :Ebdula Behramî, Hekîm Rizayî û bi sedan qehremanên din pêşkeşî doza azadîya Kurdistanê kirine.

---

**Dom gotara " Îraq ber bi kû ve"**

Ewane û pir tiştên din hene ku Erebên Sunne dixwazin ji xwe re garantî bikin. Bo mînak, mesela Tariq Haşimî, berfirehkirina deshelata wan di dewletê de û...hwd.

Lê di vê navberê de kurd jî diviya jê bifikirin ku pîlanek bi rêve ye. Dema ku ev armancên Sunneyan hatine cih (ku ez bi dûr nabînim) vê demê astengî bo kurdan zêdetir dibin. Astengiya herî mezin ewa ye ku dewletên Erebê Sunne, Turk û...hwd piştgirya Sunneyan dikin. Herwisa sinûrê herêma kurdistanê jî hemû bi Sunneyan re hevpar e, û deverên veqetiyayî ên herêma kurdistanê jî, hem Sunne û hem dewletên navhatî, tu caran naxwazin weke Kurdistan nas bikin, lewma jî zivirandina wan bo ser herêmê rastî astengiyên mezin dibe.

Di vî halî de Malikî û Şîe jî dûr nine ku pişta Sunneyan bigrin û kurd bi tenê bimînin. Yanî derdor dixwazin kurdan û Erebên Sunne bihevre bikevne rikeberiyê ku bi hizra min di vê navberê de zirara mezin li kurdan dikeve. Malikî û Şîe her hakim dibin li welat de, deverên veqetiyayî nakevne ser herêma kurdistanê, û dê bibne beşek ji herêma Sunneyan.

Di dawiyê de ez êvî dikim ku serkirdayetiya siyasî a başûrê kurdistanê cehdê bike bo yekrêzî û bihevre karkirinê, heke kurd di roja îro de yekgirtî neçe meydanê, ez bawerim destkevtên kurdan kêm dibin.





**Encam**

Di lîstika navbera Şîe û Suneyên deverê de kurd heke yekîtiya xwe neparêzin û bi hûrî tevnegerin, wê zirarê bibînin. Alîkar û hevdestên Sunneyan pirr in, û îmkanên wan jî pirr in. Bitaybetî dewleta Turkiyê dixwaze ji rêka Erebên Sunne ve nehêle kurd deverên veqetiyayî vegerînne ser herêma Kurdistanê, û bikne beşek ji herêma Sunneyan.

# Zimanên doh, îro û sibê





Zafer Berdestî

Bi pêşketina zanîn û teknolojiyê re hemû beş û pariyên jiyanê guherîne ku yek ji wan jî ziman e.

Ziman çendî li ser koka xwe dirêj/mezin dibe jî , û tev pêşketina zanîna însan ve şax vedide û diguhere. Her roj peyvên nû dikevin nav ziman û bi "dem-mekan-jiyan"ê re hemaheng ew jî pêş dikeve. Di demên berê de, ji bilî îstisnayan peyvek beramberî heyînekî – belkî dudu yan heta sisêyan-dihat bikaranîn û peyvên hemwate û hevdeng kêm bûn. Lê îro êdî ne wisan e. Gelek ziman êdî di vî warî de guherîne, peyvek dikare were gelek wateyan an jî gelek wateyên cuda dikarin bi heman peyvî werin îfadekirin. Em gava li ferhengên kurdî, tirkî, erebî, îngilizî dinêrin ev rewş bi hêsanî tê dîtin.

Ev rewş ji ber keşf û îcadan, amûrên nû yên teknolojîk, navgînên ragihandinê, têkiliyên civakî û kesayetî dertê der û xwe nîşan dike. Însan, zimanê xwe li gorî van nûtî û pêşveçûnan amade dike, dixebitîne û eyar dike. Jê re çawa hêsan, biçêj û herikbar were zimanê xwe wisa lê tîne. Heta peyvek dikare ji maneya xwe ye eslî gelekî dûrkeve û êdî bi maneyên mecaz were naskirin. Mînakên van gelek in.

Bi ya min îro hînbûna zimanan ji do dijwartir e. Di vê derê de dijwartî ne di hînbûna zimanê zikmakî de, di hînbûna zimanê biyanî de bi taybetî jî di temenên mezin de ye. Herçiqas rê û rêbazên hînkirinê, bername û plansaziyên nû yên perwerdehiyê îro zêdetir riya hînbûnê vedikin jî îro barê hînbûnê girantir e. Lewre îro hem peyv zêdetir in hem jî maneyên wan zêdetir in. Lewma em êdî îro peyvekî bi carekî de na belkî bi çend caran de paşê dikarin hîn bin. Ev jî barê me yî giran e.

Herwiha wiha bidome pêkan e ku sibê zimanên biyanî bi rehetî nikaribin werin hînbûn û însanek wekî berê nikaribe çend zimanan bi hev re hîn be. Her roj tiştên nû wê derkevin û navê wan, peyvên bi wan re eleqedar ew ê ziman firehtir bikin.

Lê însan dibe ku çareya vê bi amûrên teknolojîk bîne. Dikare amûrên wisa çêbike ku di saniyê de zimanekî wergerîne zimanekî din. Wekî mînak bi berçavkekî, bi saeteke serzend an jî bi telefonê yan jî bi amûrekî taybet di lezê de wergerê bike û însan ji vê zehmetê xilas bike. Însanek biaxive û wergera axaftina wî/ê li ser cama berçavka muxatabê wî yan jî li ser ekrana saeta muxatabê wî were xwendin.

Lê ev ne riyeke mukemel e. Jixwe jiyana însanan bi amûr-hacetan ve hatiye dorgirtin dê zêdetir bipêçe û dê însan zêdetir hînî teraliyê bike. Ev ji aliyekî ve ji ber girtin e, kopî kişandin e lê însan jixwe ji eslê zêdetir hez kopyayan dike. Tenê dibe ku bi kerî pirzimaniyê were. Lewre rêbazeke wiha dê cihanê mecbûrî yekzimaniyê neke û zimanên din nekuje.

Îro zimanên pêşketî berê xwe dane pêşerojê û diçin. Di her gaveke xwe de jî piçekî zêdetir mezin dibin, fireh dibin, giran dibin. Zimanên dinyayê do nêzîktirê hev bûn îro ji hev dûr ketine, hejmara wan gihiştiye hezaran. Ji îro û pê ve xuya ye hinekên wan dê bimirin hinekên wan dê rawestin û hinekên wan jî dê pêşkevin û ji hev zêdetir dûrkevin. Kesên ku dixwazin zimanên pêşketî hîn bin divê ji bîr nekin ku peyvên hîndibin ne wek peyvên berê ne.

## Kaniya helbestan



BÊWAR BARÎ TEYFÛRÎ

**Ey Kurd**

**Qedera te derbaz dibe bê wate,**

**Jiyanê da dilê te ne rehet e,**

**Bi yekbûnê yekser rabe raweste,**

**Hemberî zulm û înkara bi çete.**

**Te tu dera qebûl nakir bê warî,**

**Kuda diçî serbest nînî stûxarî,**

**Her kîvî jî nayê pêş çavan tucarî,**

**Vê rewşêda pêşeroj jî tim tarî.**

**Tu alt bike vê cîhana bi şîddet,**

**Ava bike jiyaneke bi rûmet,**

**Tu alt bike vê jiyana bi minet ,**

**Tu jî bijî jiyanek bi sîyanet.**

**Heya ku xelqperestî bê niştmanî,**

**Jiyanê da tê birizî erzanî,**

**Pêş cîhanê bê fehmî û nezanî,**

**Vê rewşê da gelo kêra lazimî**

**Ey Kurd**

## Tiliyên destên sê ji birîndarên bûyera Şînawê hatin birrîn



**Piştî derbazbûna pitir ji 40 rojî bi ser bûyera agir ketina xwendingeha gundê Şînawê a ser bi Pîranşarê ku têde 37 dersxwanên keç şewitîn, seba xirabiya rewşa cismî a 10 zarokên bûyerê, pizîşk neçar man ku tiliyên destê sê ji wan bibirin.**

Hewceyî basê ye ku bi sedema kûrbûna birînên wan 10 zarokan, sê di nexweşxaneya bajarê Îsfehanê û yek jî, di nexweşxaneya bajarê Tewrêzê û sê yên din jî di nexweşxaneya bajarê Meşhedê de di bin çavdêriya pizîşkan de ne.

Her di vê pêwendiyê de Fireydûn Abidînî, berpirsyarê nexweşxaneya Îsfehanê ragehand ku; dema ku zarok bi mebesta çareseriyê li nexweşxaneya bajarê Tewrêzê de hatibûne ragirtin, ji emrazên kevin mifah wergirtine, lewma digel vê haleta metirsîdar berbirû bûne. Di roja rûdana bûyerê ve heya niha, du zarokên şewitî bi navên Seyran Yêgane û Sarîna Resûlzade, seba giraniya birînên xwe canê xwe ji dest dane. Çend roj berî niha, Sobeya neftî a xwendingeha nawendî ya Gundê Xamsan a ser bi bajarê Kamyaranê jî agir girt û keçek bi navê Azîta Miradî, bi giranî birîndar bû.

Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com

# Beşeke Kurt ji şîretên Pêşewayê Kurdan Qazî Mihemed yekemîn serkomarê Kurdistanê

Yekîtî û hevgirtinê di navbera xwe da biparêzin, karên ne layêq li hemberî hev nekin û ji hev re çavnebar(hesûd) nebin. Bi taybetî di berpirsyartî û xizmet kirinê de.

Ji bo çend roj jiyana bêqîmeta vê dinê xwe nefiroşin dujimin, çimkî dujimin dujimine û cihê bawerpêkirinê nîne.

Îxanetê li hev nekin, ne îxaneta siyasî û ne canî û malî û namûsî. Jiber ku îxanetkar li cem Xwedê û mirov sivik û tawanbar e. Îxanet bi ser rûyê îxanetkar de vedigere.

Hûn ji dewama xebat û têkoşînê nesekinin, heya ku mîna hemî gelên din li jêr destê dujiminan rizgar dibin. Malê dinê ne tiştek e, ger welatekî we hebe, serbestiyek we hebe, mal û ax û nîştimana we ya we bixwe be, wê demê hemû tiştekî we heye, hem mal, hem heyîtî(sirwet), hem dewlet û abirû(heysîyet) û nîştimana we jî yê hebe.

Ez bawer im ku tenê mafê Xwedê nebe, mafê kesekî din li ser min hebe, lê ger kesek li cem xwe wiha dizane ku kêm heya zêde tiştekî wî li cem min heye, serweteki pir zêde min li pey xwe hiştiye, bila here ji warisên min bixwaze û bistîne.

Heya hûn hev negirin, sernakevin. Zulim û zorê li hev nekin, jiber ku Xweda gelek zû mirovê zalim ji holê radike û ji nav dibe. Ev soza Xweda ye, û zû yan direng, zalim wê ji nav here, û Xwedê wê toleya zordariyê ji wan bistîne.

Hêvîdarim hûn guhê xwe bidin min û Xwedê we bi ser dujminan de bi ser bêxîne.

Xizmetkarê gel û nîştiman

Qazî Mihemed



20. Chiana village near Naqadeh, spring 1946

*L-r (after guard with automatic weapon)*: Rahim Javanmard Qazi; Salahaddin Kazimov (Kakagha; USSR); Sayyid Ahmad Sayyid Taha (Iraq); Qazi Muhammad; Said Homayun; Muhammad Rasuli 'Dilshad'; Lt Khairullah (Iraq); Qolam Reza Khan (Qarapapagh tribe)



Qazi Mohammad shares a watermelon with Archie.

